# azadî

## KOVARA MARKSÎSTA KURDÎ



*ji azadî û serxwebûnê birûmettir tiştek nîn e. ( Ho Chi Minh )*

hejmar 2 tebax 1978

# Li ser şerê hindurê KURDİSTANA ÎRAQÊ

Dîsa tiving û kalaşnîkov teqiyan li Kurdîtana Îraqê,hin pêşmerge bi gullên hin pêşmergeyên din hatin kuştin.Dijminên gelê kurd,bûrjûwaziyên Tirkiye,Îran,Îraq û Sûriyê ji kêf û şahiyê difirin:Kurd bihevdikevin qet ji wan gerin , bınêlin bila hin bi çekên Sûriyê, hin bi yên Îranê qira hev bînin;bêy ku têkilî wan bibin ew hesabê hevûdin bibînin.Bêguman , ji hemiyan bêtir,karbidestên Bexdayê dilşa. ne.Ku Kurd hêzên hevûdin qelsbikin, li dijî siyaseta faşîsta valakirina Kurdîstanê, ya şarederkirin û sirgûna gundiyên Kurd berxwedan,şerê çekdar qels dibe,Baas dikare bi qîma xwe,li gora kêfa xwe bilive;

Sedemên vî şerê hindurî çi ye ?Berî her tiştî divêt ku bê gotîn ku ev ne cara pêşîn bû ku alîgirên PDK a Barzanî û yên Yekitiy Nîştimanî ya Talabanî bi hev ketine Ewan berê vî şerê dawîn, du nav du salan de ji hevûdin nêzikî çil kes(bi piranî hogirên Talabanî) kuştibûn. Jibo rawestandina van kuştin û pevçûnên hindurî,di sala 1976 an de,Sûriye ketibû nava her du aliyan,Talabanî û " Samî " (Muhemed Mahmûd Abdurreheman, " mêjî " yê PDK a Barzanî) li Londonê dûrûdirêj li ser aşîtî û li hev hatina navbeyna PDK û YNK axaftibûn. Dû vê yekê re,Mesud Barzanî di dawiya 1976 an de çûbû Şamê û ew û Talabanî li ser navê Partiyên xwe,bi partiya Baasa Sûrî re peymanekî imza kiribûn jibo ku dijheviyên nava xwe bi peyivdariyan safî kû,hêz û xurtahiya xwe bidin şerê dijî Îraqê, û heta ku ji wan tê li hemberî Îraqê hêzên xwe yekkin.Ev bû daxwaza Sûriyê ku pişta herdu aliyan ji mizdida , devê kîsik ji wan re vedikir,da ku ew şerê Îraqê bikin.Emê hinek dûrtir bibînin sedemên "xêrxwazî" û " dilxwaziya" Sûriyê jibo Kurdên Îraqê.

Ev peyman pirîcar di kulîya,lê dîsa ji likar bû, qenc xerab dimeşiya heta destpeka hezîrana dawîn. Ber bi 15 ê hezîranê, bi sedan (hin kanî dibêjin bi hezaran ) pêşmergeyên PDK û YNK ê li navça ku tixûbên Tirkiye,Îran û Îraq dighêjin hev dest bi "şerê dawîn " dikin,da ku hemberên xwe "ji binî"paqij kin.Ji her du aliyan nêzikî 40-50 kes tên kuştin,gellekên din birîndar dibin. Hêzên YNK dixwazin firekişin.Yek ji wan, di bin serokatiya Elî Eskerî,endamê Polîtburo ya YNK,dike berbi Amadiyê here .Dora wê tê girtin,hin ji wan tên kuştin û hinên din tevî Elî Eskerî,Tahir Elî Welî û Seyit Kaka dîl tên girtin,dikevin lepên hêzên PDK a Barzanî.[1]

SERECEM

Komekî din ê YNK ê jî li ser riya Zaxoyê dikeve dafika PDK yê û dîl dibe,tevî serokê xwe Dr.Xalid Said, yek ji serekên YNK ê. Di belavoka xwe ya be rê navhildayî de,YNK dibêje ,ku leşkerên Tirk êrîşê vê hêza han kirine û pişt re Şexmûs Kerwan,serekê eşîra zîrekî ya,wan biriye kiriye nav dafika PDK ê.Ev yek çiqas rast e,nayê zanîn.

Dawîne ya pêşîna vî şerê brakuj:40-50 kuştî,gellek birîndar û bi dehan endamên YNK dîlgirtî,di nav wan de çar ji berbiçavtirîn serekên YNK ê.

Sedemên hemayî û nêzikên vî şerî ?Bi awê YNK,ev komploya MIT û SAVAK ê ye ku bi destên PDK a Îraqê û bi arîkariya hin eşîrên Kurdên Tirkiyê , dixwazin şoreşa demokratîka Kurdîstanê biş kênin,hêzên ku peyda bûne bipelişînin,riya wana danûstana derva (ya Sûriyê)bibirin.Di belavoka xwe de,YNK navê Zekî Beg hildide wek serkarê MIT ê li Hekariyê ku nav di Macit Hecî Ehmedê serekê eşîra Cigorce dide û bi "Samî " û Savak re pîlanên şikandina hêzên YNK datîne;riya pêşmergan dide birîn, wan dike dafikê[2] Dîsa YNK dibêje ku her wekî wê PDK ê ji navçeyên Kerkûk,Silêmanî û Erbîl paqij kiriye,PDK bi birîna riya danûstana derva dixwaze hey fa xwe bistîne.

Li gora Karbidestên PDK a Îraqê,hevalên Talabanî bi hêzekî xurt ve ji Îranê dihatin ku hêzên PDK ê bi derbekî paqij kin.PDK jî diviya xwe biparêze û tiştê ku pêwîst bû jibo hişkirina YNK kiriye.PDK,YNK yê bi "caşî xulamiya MIT û Sûriyê itham dike,gava ku jibo YNK,KDP ji Savak , CIA û MIT ê re hatiye firotan.

Ev e seviya dahûrîniya (analîza) her du partiyên ku doza rizgarkirina gelê Kurdê Iraqê dikin,xwe ji vî gelî re serokatiyekî ilmî hesab dikin!

## TILIYA MÎT Û SAVAK Ê?

Ku tiliya Savak û MIT ê di vî karî de heye,ev tiştekî diyar e.Hê meqerê PDK li Iranê ye.Îdrîs Barzanî,endamê "serokitiya Derb asok" (Qiyada mu weqet ), li Tehranê dimîne,bi peywendiyên PDK û Îranê bilî dibe. Hêz û pêşmergeyên PDK ê ji Îranê ţên û ne bi dizî.Li Îranê,fira mêşan ji ber çavê Savakê nareve,heta ku çûnehata pêşmergên Kurdên li Îranê bicîh bûyî nebîne.Bi çîrokê awa qeremanî gelo hê kes bawer dike ?

Haya MIT a Tirkiyê ji ji her tiştî heye;hin karbidestên PDK ê riya London û Hekariyê kirine riya kaniyê,li Hekariyê xwedî meqer in,bi serekê MIT ê re radibin rûdinên,berx sor dikin.Bi awê ku kovara "Briefing"ku li Ankarayê bi inglîzî jibo diplomatan û çapa biyanî derdikeve,MIT çavê xwe li ser çûnehata Kurdên Îraqê ,yên Barzanî û yên Talabanî,ji bo sê tiştan digire.

1° Çawa be lihevhatina wan ne mimkine;ewê li ser çûnehat û riya xwe ya Tirkiyê be jî şerbikin,hevûdin qels û pûç bikin,ji talûketiyê derkevin.

2°Himin pêşgirtina van hêzan ne mimkine,ew çax çêtir e ku meriv bihêle riya wan di Tirkiyê de derbas bibe da ku xurtahî,hêz û pirsiyarên wan,hebûn û milîtanên wan çêtir bên naskirin.Ku te tiştekî rind naskir di karî li wê gorê hezrê xwe bikî.

3°Bi çûnehata wana ser Tirkiyê de, berê hin hêzên Kurdên Tirkiyê,yên ku xwe biwanve girêdane,didin Îraqê, wan pûç dikin,ew jibo demekî be jî ,ji Tirkîyê re nabin talûke[3].

Gelo van şîretan Savak an CIA li MIT ê kiriye ? MIT a ku heta niha hin hevalan dixistin şûna hêlîna kêmaqilan !

Di milê din de tu tiştekî YNK ji destbirakên wa yên Sûriyê ve ne veşarî ye û Sûriye bi kêm an zêde arîkariya xwe,bi çavnêriya tixûbên (Sînorên ) xwe,YNK başkiriye des[redacted] serxwebûna diravî,û dendî (maddî) ya YNK nîn e,lawra ser xwebûna wê ya siyasî jî tuneye.Kingê Sûriyê got na,ew na ye.Dibê YNK raweste.

Qenc xuya ye ku tiliya dewletên ku erdê Kurdîstanê li hev parkirine di şerê nava Kurdan de heye.Lê emperlalîzm.paşverûtî,Şah, MIT,Surye di ciyê xwe de,li gora kêfa xwe nikarin şerê awaha peyda

---

1.*Binêre Belavoka YNK ku di destpêka timehê (temûzê) bi erebî û farisî derketiye.*
2.*Dîsa di wê belavokê de.*

bikin;ew tenê dikarin pifbikin ser agirê pêketî,wî gurr û geş bikin.

Loma sedemên hindurî yê vî şerî hene ku ew jî doza serokatiya tevgera Kurdên Iraqê ye.Hindê ev şer tenê dibe şerê nava du beşokan(Franksiyon)?Na xêr Şerê nava beşokan divê ku şerekî îdeolojîk û siyasî be.Di vî şerî de kêrhatinîyên dendî (maddî)yênmezin jî hene.

Ji alî siyasî de her du partî jî doza şoreşgerî û sosyalîzmê dikin.Lê ev tenê jibo xapandina pêşmerga ye.Divê ji niha va şoreşgerên Kurdîstanê,marksistên Kurd dîyarkin ku tiştên ku ev keşên han liser navê sosyalîzmê dikin,fêşkên wan,girêdanên wanên derve,awayên xebata wanî hindûrî tucar ne yên sosyalîzmê ne.

## DEMA BAZIGAN Û AXAYÊN ŞER.

Çawa bawerkin ku PDK ku heta do ketibû dûvika SAVAK,CIA û Israilê,ku di nava xwe de şoreşgerên Kurd,wek Faxer,mêrxasê şerê Hendirînê,wek Suleyman Moeynî û bi dehan Kurdên din ji Îran,Îraq,û Tirkiyê,bi ithama çepîtiyê dida kuştin;kommunîstên Îraqê ku ji derve dihatin û di Kurdîstanê de derbas dibûn gulle dikir,ya ku roja Şah go tê bisekinin,Kurdîstanê hişt û revî,bi derbekî bûbe şoreşger wek gunekarê ku di xewna xwe de ewliya dibîne û dotira rojê tobe dike, dibe welî.Serekê PDK, Barzanî li Washingtonê ye,ji Carter re name dişîne divê bi salan min dijî kommunîzmê şer kirîye arîkariya min û partiya min bikin. Serokekî din li Tehranê bi gotina Savakê radibe rûdinê.Hinên din bi milyonên ku ji şoreşê hatiye dizîn li Ewrûpayê wek paşa kêf dikin,tîcaret dikin . Her wekî serokên PDK a kevin û ya nû eynî kes in û di awayên wan de guhêran tuneye,serokatiya PDK a Iraqê ne tenê ne şoreşger e,lê ne demokirat û welatparêz e.Ew AXAYÊN ŞER IN,TICARETA KURDÎTIYÊ DIKIN.Meznahî û hebûna wan ji şer e;bi şer e. Wan divê hin pêşmerge hebin,li hemberî Iraqê şer bikin û ew jî li ser navê wan û jibo xatirê vî şerê ku Iraqê qels dike herin ji hin dewletên ku qelskirina Iraqê dixwazin pere bistînin û pê kêfa xwe bikin.Ev têcirî ye;bazirganî ye û divê ku gelê kurd vê yekê qenc nas ke.Divê ku ji pêşmergeyên dilsozên ku dixwazin jibo rizgariya Kurdistanê şer bikin,ev rastî bên eşkere kirin. Bêy qewirandina serokîtiya paşverû û bazirgan,şerê aizgariyê pêncî sal şûnde jî naçe serî jiber ku hefsar di destên dewletên dijminên gelê Kurd dane.Ev dewlet bi vê serokîtiya ji sedsala XIX a mayî ku dinya nûjen û ji pirsên wê tişte kî famnekirî ye,dileyîzin,wê li gora bikêrhatiniyên xwe dimeşînin. Divê ku li riya rizgariyê asê bûne,ji sahna dîrokê bên pakijkirinê.Indî bes e dema beg û serekeşirên kilekor û kevnare ku sed sal in şerê rizgariya gelê Kurd bi nezanî û averû yên xwe, yên pêşekî (îptîdaî) kirin marê nîvkuştî!

BES E DEMA AXAYÊN ŞER Û BAZIRGANÊN KURDÎTIYÊ !

*(dûmahîk heye)*

HEJMARA KU TÊ :PIRSA YEKÎTIYA NİŞTÎMANÎ



# Destbrakiya Barzanî û Israîl

Mî bizin bi dizî gon dixwin,eşkerê dizên.

Fêşk û veşariyên serokîtiya PDKa Iraqê derdikevin ser rûyê avê,diyar dibin.

Piştî"Pike Report" a Senatoya Dewletên Yekbûyî yên Amerîkayê ku danûstanên CIA, Nixon,Kissinger,Şahê Iranê,Savak û Barzanî li ber çavên dinyayê eşkere kirin,bi wesîqa nîşandan çawa serokîtiya feodala tevgera Kurdên Iraqê qedera xelkê kurd û ya tevgereke di dest pêkê de gelerî û pêşverû kirin nav lepên Şahê zorkar û faşîst, û Nixon û Kissingerê ku destên wan hê bi xwîna sedhezarên şerkarên rizgariya Viet Namê bû,va yê îcar agahwerekî(wesîqa)ku peywendiyên Barzanî û Israîl eşkere dike ku di rojnama cihu" Yediat Ahronot"a 10-5-1978 de derketiye û ku rojnama"Jerusalem Post"a 16-5-1978 bi Inglîzî çapdike.

Di vê bendê de Eyre Eliav,endamê Knesset(Parlemento)a Israîlî û wezîrê dewletê yê kevnê Israîlê dibêje çawa di dawiya 1966an de Levi Eşkol,serekwezîrê Israîliyê hingê,wî şandiye Kurdistana Iraqê û çawa lê wederê rastî Barzanî hatiye.Di bîranînên xwe de Mîrze Eliav bi qureyî dibêje çawa ew destvala biser Kurdan de neçiye û bixwe re ji wan re nexweşxaneyekî cîguher(seyyar) birî ye.Em wisa jî hîn dibin ku "kak Idris" jê re rehberî kiriye û wî li çar aliyên Kurdistanê gerandiye

## MEHÊ 50.000 DOLLAR

Barzanî jê re gotiye:Ji serekwezîrê xwe re bêje ku hun brayên me ne û emê tucar kerema we bîr nekin."Piştî vê hevûdin dîtinê Israîl mehê ji kerema xwe re 50.000 Dollarên USA dida Barzanî û jê re bi ser riya Iranê çekên sovyetî,yên ku ji Ereban ketibû destê wê,dişand(da ku kes şika arîkariya Israîl û Amerîkayê nebe ser tevgera kurd).Di salên 1969-1972,serokîtiya PDKa Iraqê arîkariya cihû yên Iraqê,yên ku dixwazin birevin,dikir û Israîl ji nemerdî nedikir,li wê gorê qedrê wan digirt,devê kîsik bêtir vedikir,"kerema"xwe zêdetir dikir.Û bi gotinên gotinbêjan ev"kerem" hê jî dom dike.

Bilî"arîkarî"ya Savak,CIA û Israîlê bi awê ku Dr.Mahmûd,milê rastê Barzanî,di kitêboka xwe ya rexneyî(tenkîdî)dinivîsîne,Kuweyt û Erebîstan jî ji"keremê"paşre nediman.Kerema keremkara hingî zêde bû ki di şkestina tevgerê û reva serokîtiyê de,dibêje Dr. Mahmûd,80 milyon dînarên Iraqî(nêzikî 300 milyon dollarên amerîkanî)pere civiyabû.Ev pere bi çewa lan birin Iranê û jî wir jî,bi destûra Şah Savak,derbasî Ewrûpayê kirin.Ew niha di banqên Swîsî,Ingilîzî û Amerîkanî de radizên.Serok,karbidest,berdevk û xulamokên wan li ser navû hesabê Kurdan pê ji xwe re kêfa xwe dikin.

"Dijminê dijminê min dostê min e.Ye ku di avê de dixeniqe li mar jî dilefe!"Bi vê felsefa keysperest û paşverû,şerê rizgariya gelê Kurd li ber çavên gelên peşverûyên dinyayê kirin polekî pênc pere,hetikandin.Kurdan kirin şûna Harkî yên Cezayîrê,şûna eskerên kirêkirî,şûna kozaxên Şahê faşîst.

Lê feodal û bûrjûwayên kurd qenc dizanin ku marekorên hovîtîya şah û emperyalîzma US bi wan ve na de.Ew jibo bi sedhezaran cotkar û xebatkarên Kurdên ku xapiyan,dev ji mal û zarûzêçê xwe berdan di riya rizgariya Kurdistanê de bi dilsozî û mêrxasî şer kirin,ew jibo yên ku di dema pêşîrtengîyê de serokîtî di cih de hişt û revî Iranê mar in,dijmin in neyar in.Kurdên belengazên ku di şer de pêşmerge bûn û niha li beriyên Iraqê,li kuçên Iranê derbeder û perîşan in.Jibo Serok û karbidestên feodal,şer an neşer kerem dom dike.



# Quncikê Marksîzmê

# Daxuyaniya

KARL MARX
FRIEDRICH ENGELS

Milyar û nîv meriv îro di bin rejimên ku doza marksîzmê dikin de dijîn, bi milyonan karker û xebatkar û bîrewerên (entellektuelên) Ewrûpa sermayedar, birçî û belengazên Cîhana Sêyemîn jibo sazkirina sosyalîzmê şer dikin. Sedsala me, bêguman ya tekoşînên jibo sosyalîzmê û yên jibo rizgariya neteweyîyê ye.
Li Viet Namê gelekî piçûk, paşdemayî, belengaz, derefşa marksîzmê û rizgariyê bilind dike û bi saya rêzaniya marksîst, bikar anîna teorî û azînên (metodên) marksîst serê dewleta emperyalîsta xurttirîn û pêşveçûtirîn ditewîne, xwe rizgar dike. Li ku şer hebe, li ku serxwerabûn hebe, yên ku dixwazin dinya xwe fam kin, ji xwe re rêyek derxin, pêşiya xwe bibînin, teoriya marksîst bi kar tînin.
Lewra jibo rizgariya gelê kurd belavkirina marksîzmê karekî ferz û acîl e jibo şoreşgerên Kurd. Marksîzm bi kurdî, marksîzm jibo avakirina Kurdîstanekî aza, yekbûyî sosyalîst; Kurdîstana Karker û cotkaran ne ya beg, axa, serekeşîr, şêx û sermayedaran.

Di vê pirtûka piçûka ku Marx û Engels di sala 1848 an de nvîsîne bingehên destpêkiyên marksîzmê hatine raber kirin. Ev pirtûkok nasîna dîrokî, felsefî û sosyolojîka gellek cildên stûr bi zmanekî ne pir dijwar kiriye nav çend deh rûpelen. Daxuyanî pirtûka ku li dinyayê bêtir hatiye xwendin, çap û belavkirin. Çibigre bi hemî zman û zaravên cihanê hatiye wergerandin (tercime kirin). Mixabin jiber ku bîrewerên kurdan heta niha piranî zaroyên begzade û zadeganan bû û azadiya karker û cotkara ne doza wan bû, vê afirandina hîmî nekirine kurdî.
Daxuyanî ya bi ermenî û gurcî di salên 1894 û 1897 an der ketiye hê berî çend salan bi saranî çapbûye û me tu vergerîne wê yê zanîstiyê Kurdiya kurmancî ne dîtiye. Cihanîna vî karî. Li ser me marksîstên şoreşgerên Kurdîstanê ferzbû. Jiber kêm bikêranîna kurdî wekî zmanekî zanîstî (ilmi) xwendina van bendan heye ku parî dijwar be, kerem kin wan bi bihna freh û arîkariya ferhengokê bixwin.

Werger

Xofekî li ser dilê Ewrûpayê diçe û tê: xofa kommunîzmê. Hemî xurtahîyên (qewetên) Ewrûpa kevnare di Hevalbendiyeke Pîroz de gihîştin hev, li pey vê xofê ne; papa[1] û çar[2], Metternich[3] û Guizot[4], radîkalên Fransayê[5] û polîsên Almanyê.

Kîjan e partiya dijekarîyê (muxalefetê) ku ji aliyê hemberên xwe yên li karînê (iqtidarê) bi kommunîzmê ne hatiye itham kirin? Kîjan e partiya dijekariyê ku, bixwe, gazina giran a kommunîzmê bi ser dijekarên ji xwe pêşverûtir û hemberên xwe yên paşverû de ne şandîye ?

**XEBATKARÊN HEMÛ WELATAN.**

# Partiya Kommunîst



KARL MARX (1818-1883)

Ji vê yekê du fêr (ders) dertên.

Ji niha ve kommunîzm ji aliyê hemî xurtahîyên ewrûpayî ve weke xurtahîyekî tê nasîn.

Dem hatiye ku kommunîst li rûyê hemî cihanê averû, armanc û tewînîyên (meylên) xwe diyar bikin; li hemberî çîrokên ku li ser xofa kommu - nîst tên belav kirin daxuyaniyekî partiyê bi xwe derînin.

Jibo vê armancê ye ku kommunîstine ji netawahîyên (milliyetên) cihê li Londonê civiyan û daxuyaniya ..n nvîsîn, bi ingilîzî, fransizî, almanî, îtalyanî, flamanî û danîmarkî weşandin.

## I

## BÛRJÛWA Û PROLETER

DÎROKA her civakê heta rojên me[7] dîroka têkoşînên çîna (sinifa) ye.

Mirovê aza û kole, zadegan (esîlzade) û mirovê jirêzê, baron[8] û serf[9], mamosteyê Juranda[10] û berdest; bi kurtî, zordest û bindest, di dijekariyekê cîwest (sabît), şerekî bêrawestin ajotin, geh vekirî, geh veşarî, şerekî ku timî an bi veguhêrîneke şo - reşgera hemî civakê an bi windabûna her du çînên di şerî digiha dawîyê.

Di demên dîrokîyên pêşîn de, em çibigre li herciyî dibîni ku civakê avabûniya xwe ya di komikên sosyalên cihê qedandiye, xwedî hilpergalîyeke (hiyerarşiyeke) gellek cihêrenga şertên civakî ye. Di Roma ya kevnare de em patrîsîyan û şovalyan, plebîyan û koleyan dibînin; li heyama navîn beg û pêgirtî, mamosta, berdest, serf û serde, di nav çibigre her yek ji van çînan de hilperyalîyeke taybetî.

Civaka bûrjûwaya nûjen (modern), ya li ser kambax û xopanên civaka feodal hilkirî, dijhevîyên çînan ranekir. Wê tenê çînên nû, şertên nû yên sitemê (zordestiyê), teşeyên nû yên têkoşînê anî şûna yên berê.



F. ENGELS (1820-1895)

**GEL Û NETEWEYÊN BINDEST YEKBIN!**

Lêbelê, şaniya cihêkera dewrana me, heyama bûrjûwaziyê, sadebûnîya dijhevîyên çîna ye. Civak hemî hingî diçe diqete nav du birên firehên dijmin, nav du çînên mezinên ku rasterast şerê hev dikin: bûrjûwazî û proleterya.

(dûmahîk heye)

---

1. Papa: serekê serwerê Dêra katolîk (nîşeya werger)
2. Çar: (giliya slavî ji latînî Caesar) payeya serwerê Rûsyayê; padîşahê Rûsya berî 1917 (n.w)
3. Metternich (1773 - 1859): mirovdewletê awûstiryayî. Wezîrê dervekariyê (1809), Kongra Vienna dicivîne (1815) û jibo sazkirina Ewrûpaya kevneperesta monarşîk, dijî ramanên azadîyê û mafên çarenûsa xelkan dixebite. Yek ji sembolên kevneperestiya ewrûpayî, Metternich bi şoreşa Viennayê tê qewirandinê (nw)
4. Guizot, F. (1787-1874): mirovdewlet û dîroknasê fransiz. Pêşî, wezîrê hindurkariyê (1830), dûraye dervekariyê û serekwezîrê Monarşiya Tirmehê, Guizot wekî parezkerê kêrdîtinî û menfaatên bûrjûwaziya mezina fransizî şerê tevgerên reformîst û pêşverû kir bi şoreşa 1848 an ket û dev ji siyasetê berda. (n.w.)
5. Radîkalên Fransê: di dema Monarşiya Tirmehê, tevgerekî dijekariyê. Radîkal jibo demokrasiyê û reformên civakî şer dikirin, piştî şkandina şoreşa 1848 a û ya Komara Duwemîn ew dikevin tevî dijekariya komarxwazî ya ku li hemberî Imparatoriya Duwemîn bû. Dûre, radîkal dibin tevger û partiyeke bûrjûwaya laîk pozitivîst û parezkerê xwedaniya arizî. (nîşeya werger)
6. Bi bûrjûwazî merem (qesd) çîna sermayedarên nûjenên (modernên) ku xwediyê navgînên (aletên) civakîyên hilberîniyê (istihsalê) ne û karkeran dixebitînin. Ji proleterya merem, çîna karkerên diravgîrên nûjen ku navînên wanên hilberîyê nîn in û ji ber vê yekê, jibo dikaribin bijîn, wan divê hêza (qeweta) xwe ya xebatê bifroşin. (nîşeya Engels, çapa ingilizî ya 1888a)
7. an, ya rastirîn, dîroka ku bi nvîsandinan gihîştiye me. Di 1847an de, pêşdîrok ango (yanî) dewrana civakiya ku pêşiya hemî dîroka nvîsî tê, çibigre ne dihate nasîn. Ji hingê ve Haxthausen bi ser hebûna li Rûsyayê, ya xwedanîya (milkiyeta) hevrayî vebû. Maurer nîşan da ku ev xwedanî hîma civakî ye, ji kîjanî hemî eşîrên alman dertên. û. berebere hate diyar kirin ku komavaya (kommûna) gundî, bi xwedaniya hevrayî ya erdê, teşe ya pêşîna civakê bûye ji Hindîstanê heta Îrlandayê. Dawî, avahiya vê civakê kommunîsta destpêkî, tevî aliyên xwe yên şanker (tîpîk), bi servebûniya kîfşkera Morgan hate raber û ronak kirin. Morgan xwezaya (tabieta) rastîna bra xweyiyê û şûna wê ya li nav eşîrê da nasîn. Bi pelişîna van cemaetên pêşîn veqetîna civatê nav çînên cihê û dawîde dijîhev destpêdike. Min di Jêzaya Malbatê, xwedaniya arizî û dewletê de, çapa 2a, Stultgart, 1886, siêtiya taswîra pêvajoya vê pelaştînê kir. (nîşeya Engels. çapa înglîzî û almanî yên 1890, 1888 an)
8. Baron (ji baro "mérivê aza") payekî zadeganiyê di dewrana feodal de. Bi meznahîya war û hebûnên xwe ji şovalye bilindtir lê ji vîkont jêrtir bû (nw)
9. Serf (ji latînî servus "kole"). Di dema feodal de kesê ku ne xwediyê azadiya xwe ya temamî bû, bi erdê ve girêdayî bû li pêşberî xwedîerd hin diviyayîyên (mecbûriyetên) wî hebûn bêşdar û suxredarbû
10. Jurand. Di dema karcivan (korporasyonan) de gizîrî ya helbijartî û sundxwarî ya karcivekî; temsilkariya karcivê dikir mafên (heqên) wê dipa rast û li bicihanîna pergala (nîzama) hindurî dinihêrî. (n.w.)
11. Patrîsî (ji latînî patricius, ji pater "peder, malxwe") Di

# Ji Dîroka Kurdîstanê

## DESTPÊKA DÎROKÊ

Kurd ji ku tên ? Gelê Kurd çawa,di çi demê de peyda bû ye? Kîjan gelkok,eşîr û nijad tekilîhev bûne jibo çêbûnîya gelê Kurd?Pêşî û kalikên Kurdan kî bûne, çi kirine?Dîroka wan, şehrezayî û çanda wan?Kurd çawa ketin bin destan?Şer û tevgerên jibo rizgariya Kurdîstanê kîjan in, dîroka wan,kêmasî û xeletên wan çi nin , jê çi ders dertên?
Ev in hin ji gellek pirsên teorîkên ronak û safîkirina kîjanan jibo têgihîştin û pratîka şoreşgerên Kurdîstanê pêwîst e,ferz e. Jiber ku nasîna berê, borî (mazî) yê bikêrî têgihîştina(famkirina)niha û wêbêyê tê û zanebûna wan hêsantir dike,riya li pêşiya me ronak dike.

Heta meriv tiştekî nasneke nikare wê biguhêrîne;heta ku em civaka kurd,pêkahiyên(realitên)Kurdîstanê rind ne nasin emê nikaribin wan **biguhêrin**.

Pirsiyara Kurd ji ku tên,bêşik,di cîhkî de,bi ya mirovahî (beşeriyet)ji ku tê ve girêdayî ye.

## MIROVAHÎ JI KU TÊ?

Xebatên zanistiyên dawîntir û ewletir yên ku bi azînên (metodên)radioaktivitê hatine pêk anîn, diyar dikin ku emrê Erdê li dora 4,5 milyar salî ye.

Peydabûna mirovan li ser rûyê erdê ne zikê milyonek sal berê qewimiyê.Berî hingê,ji dest sermayên xurt û hişk û qeşayên ku nîvê bakûrê Asya,Ewrûpa û Amerîkayê dinixamtin şertên zayina jiyana mirovî tune bûn.

Mirovê destpêkî yê wê heyamê hê pir nêzikî dewaranî bû. Wekî meymûnan,ew di nav daran de tazî dijî,ji xwe re tu star ava nekiribû. Lê cihêbûna wî ya himî (esasî)ji dewaran ew bû ku ew destên xwe bikartanî,pê peywengan(aletan) çêdikir,serê kevira tûj dikir jibo ku pê xwe ji dehbe,hov û dewarên kûvîyên ji xwe xurttir biparêze.

Kalikê me yê wê dewranê bi berhev kirina meywe,gûz,berû, hwd..û bi nêçîra dewarên hûr dijî.Li hemberî xurtahiyên xwezayê(tabîetê)aciz, qels,mirov hê di dest pêkê de mecbûr bûn bigihên hev,bicivin,bihevre bijîn,bihevre bixebitin û bihevre xwe biparêzin(mudafaa bikin).

## GARANÊN MIROVÎ

Kombûnên mirovan bi vî rengî dest pê kirin.Ji ber paşdemayina wan, zane ji wan re"garanên mirovîyên pêşekî(iptîdaî)" dibêjin.Di vê garanê de cihêbûn, parîkirina xebatê, newekhevî,xwedaniya erd an tiştan,peywendiyên malbatî,malbat (aîle) bixwe tune bûn.Yê ku ne ji garana yekî bûna jê re dibû nêze-neyar.

Hewcedarî,têkoşîna xwe parastinê,şerê jibo jiyan û nemirinê li dijî hêzên Xwezayê(tabîetê)him bi him nasîn,zanebûn rewş û şehrezayiya mirovan pêşvebir,mêjî û hişê wan ediland, wan ji dawariyê dûr kir.E ku mirov ji dawariyê berebere cihê dike xebat e. Xebata dest mêjî geş dike,hiş û mêjî warê xabata dest firehtir dikin, wan xebatên nû didora xwe de dîsa nasînê zêdetir dikin,mêjî û hiş pêş ve dibin û ev diyalektîka han mirov ji nêze-dewarî, di nav dem û dewranan de digihîne gît û gehîneka wî ya niha.

(Ji rûpela 9 a)

*Roma kevnare de kesê ku jiber zayîna xwe ya di malekî mezin û esîl,dibû endamê çîna jorîna rûniştevanên azayên Romayê û xwedî maf û imtîya zan bû .(n.w.)*

*12.Şovalye(ji cheval "hesp")Malxweyê feodalê ku hatina warê wî dest didayê ku xwe weke leşkerekî siwarî rapêçe,çekdar bike.Dûre,paya zadeganiyê ya nizmtirîn.*

*13.Plebî(ji latînî plebs "gel,xelk")Di Roma entîke de endamê çîna duwemîna rûniştevanan ;kesê ji xelkê(n.w.)*

▲▲▲▲

Piştî dema jiyana nav daran,jiber guherandina şertên xwezayî,jiber zêdebûna sermayê,mirov ji daran dadikevin,ji xwe re li starên germtir û ewletir digerin,di şikeftan de dihewin. Berebere nêçîra dewarên gir(mammut kû vî yên ren,gakûvî,hwd) bi ser berhevkirina meywan dikeve.

Mirovê nûjen, yê ji dewariyê qenc cihêbûy,di vî şerê dûr ûdirêj de,di vê têkoşîna bêrawestina jibo jiyanê û jibo e edilandina şertên jiyanê de peyderpey di navbeyna hezarsalên 40 an û 12 an de peyda dibe,ango mirovê ku em niha nasdikin, teşeyê xwe yê neha, bi hîmî berî duwanzde hezar salan de girtibû.

Çêbûniya nijadan(irqan)jî di wê demê de destpêkiriye.Di nav deman de,şertên jiyanê guherîn,endamên " garanên mirovî" hingî zêdebûn ku ciyê ku lêbûn têra hemiyan nedukir.Hewcedariya kombûnên nû, yên parîkirina xebatê û parastinê,merivan ji pergala "garanî"ber bi pergala eşîrî bir.Gewşînî (xsûsiyet) ya eşîrê ew ekku ew ji merivên ku ew "xweynekî"ne,meriv û biraxwe yên hev in digihîne hev,gava ku di garanê de tu peywendiyên biraxweyî nîn bû.

Gelo meriv çawa ji "xweynekî" tê.Di destpêkê de û qasî çend hezarsalan yên ku ji dêyekî dibûn ji"xweynekî"dihatin hesibandinê.Lê herwekî hê a verûya(zihniyeta)mêr û jin peyda nebûbû, kesî bavê xwe ne jî apê xwe nas nedikir; tenê dê,xal ûxatiyên xwe nas dikir.Bermaya wê dewranê hê jî di nav zehf gelan de, mînakî di nav me Kurdan de,xal ji apan(maman)nêziktir tên hesibandinê.Meteloke kî dibêje:Xal xwarziya radikin,ap braziya winda dikin.Ji vê dewrana serdestiya jinan re di zmanê zanistiyê de maderserî (matriarka)dibêjin.

## MADERSERÎ AN DEMA SERDESTIYA JINAN

Di vê demê de îndî mirov zane agir pêxe; di star û xaniyên ku wî bixwe avakirî ye dijî,zane peywengên çêtir çêke,dest bi cîwarbûnê ûkedîkirina dewaran,pehtina xwarinê,çêkirina dîz û kodikan dike.Ew di kare kevir qul ke,bi bire,hilû bike.Cotkarî,erdçinî û xwedîkirina dewaran berebere şûna berhevkirin û nêçîrê digrin. Di nava roja ku meriv têgihîşt ku dendikê meyweyê kîngê dikeve axê,hêşîn dibe,ajdide û roja ku fehmkir bixwe tov ba vêje erdê,erdçinî(ziraetê)bike,çend sedsal derbasbûne.

Hingî diçû li ser erdekî hêjmara merivan zêdetir dibû û jibo jiyan û ziktêrkirinê bêtir xebat diviya.Hêdî hêdî parîkirina xebatê bicîh dibe.jin jiber nefsnexweşî(hamîletî)û zarû mêjandin pirîcar li mal dimînin,mêr bi cotkarî an bi dewarxwedîkirinê bilî dibin.Dûre, îndîkirina karên malê,zaroxwedîkirin, kevanîtî,hwd bi tevayî dikevin stûyê jinan,mêr jî karên derve dikin ûjiber ku xwarinê tînin giraniya wan dinav malê de zêde dibe;civak ji maderseriyê berbi paderseriyê diçe.

Erdçinî di dîroka mirovahiyê de gaveke berepêş a mezin e.Ew pêşî li peravên çemên mezin peyda bûye.Ev çem Nîl (Misir),Dîcle û Firat(Kurdistan û Mezopotamya,îro Iraq), Indus(Hindistan), Hou-ang-ho(Çîn) ne.

Kurdistana me ya niha yek ji pêşîntirên dergûşên şehrezayî û çanda mirovîye.Gundê Carmo, li newala Çemçemalê li Kurdistana Iraqê, kevîntirîn gundê rohelata navîn û nêzik, û yek ji kevintirîn gundê dinyayê ye*.Li vê navçeyê cara pêşîn se û pez kedî bûn ,li ser van erdan cara pêşîn genim,ceh,nîsk û nok hatin tovkirin.

Hingê li navdeşta Iranê,li Asya Navîn, li Erebîstanê,li Ewrûpayê û li Sibiryayê meriv bi nêçîr an bi dewarxwedîkirinê dijîn.

* *Binêre P.J.Braidwood, Prehistoric investigation in Iraqi Kurdistan Chicago,1960.*

HEJMARA KU TÊ : ÇEND GOTIN LI SER DÎROKA MEDYA Û YA DEWLETÊN KURDÊN HEYAMA NAVÎN,

# Gerokê Tirk EWLİYA ÇELEBÎ salixê Qesra EVDAL XAN dide

Gerokê Tirkayê binavûdengê sedsala XVII° Ewliya Çelebî di salên 1652-1653 an li Kurdîstanê geriyaye, pêlekî li Erzeromê û li Dîyarbekirê, dûre li Wanê maye. Di rewîtiya Wanê de riya wî û serdarê wî Melek Ehmed Paşa bi Bedlîsê ketiye û li wêderê qasî deh rojan bûne mehvanê Mîrê Bedlîsê Evdal Xan.

Di gernama xwe de Ewliya dûrûdirêj qala bedewiyên Kurdîstana wê demê, pêşveçûn û avahiya xwendegah û medresan, navdariya zana, pişekar(senetkar)an debdeba jî yana beg, mîr û mîrekên Kurd dike û welatê Kurda mîna "merkeza mantiq, felsefe û ilmên wê dewranê" salix dide.

Gelo meriv dikare heta kuderê itibariya xwe bi şahediya gerokan bîne, ango pê lûka (dereca) rastiyê çi ye, para nepixandinê kîjane? Meriv jibo nasiya dîrokê dikare xwe bîspêre agahwerên (wesîkayên) awaha, hinek subjektif? Bêguman Ewliya Çelebî, wekî piraniya gernamenvîsan, di uslûba xwe de cih dide nepîxandin û xweşkirinê;

gerokê çîroknvîs divê dikaribe her gav bala xwendevanê xwe bikşîne, wî bixwe ve girêde, bi xemilandin û şêrînkirina welatê dîtî, bi xwe xwezî bide anîn. Ev yek raste Lê dîsa jî; tu sedemnîn bû ku Ewliya, Tirkê Stembolê, li ciyê beredayî ev çend pesnê avahî û bedewiya Kurdîstanê bide, heke ku Kurdîstan bi rastî ne şên û ava bûna. Çima di şûna Bedlîs an Diyarbekirê, pesnê Tokat an Ankarê ne dida? Ciyê ku agir nîn be dû hilnakişe. Bilî Ewliya Çelebî gerok û zaneyên ji neteweyên din jî li ser Kurdîstana sedsalên XVII° pesîndar û hişmetnayî ne.

DI SEDSALA XVII° DE KURDISTAN WARÊ FELSEFE Û ZANISTÎYÊN XWEZAYÎ BÛ

Mînakî, zanayê mezinê sedsala XVII° dîroknvîs û gerok, ensîklopedîst Hecî Xalifa (di 1658 an de mirîye) di tenga xwe de dinivîse: "Zanîstî(ilm) li cem Tirkên Osmanî di rewacê bûn heta heyama Qanûnî Silêman(1520-1566). Piştre, tenê li welatê Kurdan hê ji felsefe û zanistiyên xwezayî(tabiî) re hê wes hebû; zaneyên Kurd bi wan bilîdibûn û ew geşdikirin".

Li gora salixdana Hecî Xalifa di kitêbxana Sultan Huseyn, mîrê Behdînan de, ji 2000 cîldî bêtir kitêbên destnvîsî hebûn.

Ronak e ku şahidiya zanayê Ereb Xalifa û serpêhatiyên gerokê Tirk Ewliya Çelebî hevûdin digrin, yek yê din dixurtîne û her du jî derbekî li çîrçîrok û efsaneyên "Kurdên hovên serê çiya, bê medeniyet û şehrezayî" dixin. Kurd ne tenê cotkar û koçer bûne; wisa jî zana bûne, bi pîşe(senet) zanistî, wêje(edebîyat) bilî bûne, bedewiyê, delaliyê, evînê hebandine: ji xwe re çand û şehrezayiyeke dewlemend, biserê xwe afirandine. Çiqas bûrjuwaziyên zorkerên tirk, ecem û ereb bixwazin van rastiyên dîrokî veşêrin, dîroka me bidin windakirin, kitêbên afirandinên kurdên kevn bişewitînin jî cad û xebata wan tewş e: Ne dikarîna milê kesî deye tîrêjên rojê veşêre. Ku ew çavên xwe girtibin, paçik kiribin guhên xwe, serê xwe kiribin nav qûmê û naxwazin rojê bibînin, ev kêmhişî û mêjîzengariya wan nîşan dide, na be nîşan tunebûna rojê!.

Me ji gernama Ewlîya Çelebî keriyekî kurtê li ser Qesra Evdal Xan derxist

# JI DÎROKA KURDISTANÊ

Evdal Xan him Mîrê Bedlîsê bû him **yek** ji berbiçavtirîn zaneyên dema xwe bû. Di kitêbxana wî de" bêhejmar kitêbên gelek giranbiha,yên ku wî bixwe civandi bû û yên ku ji kalîkên wî Şeref Xan mabûn,(...),minyatûr, cewher û zînetên bêbiha"hebûn.(E.Çelebî).Bilî(xeynî) felsefe,dîrok û zman, Evdal Xan bi mekanîk û stêrnasîyê(astronomî)jî bilî biye.

Di eynî wextê de, wekî sultan û şahên heyama xwe,Mîrê Bedlîsê xwediyê qesr û dîwanekî têr û tije, xulam û qewraş bû, li ser pişta xebatkarên Kurd bi debdebe û semyanekî şahane dijî.De em guh bidêrin Ewliya Çelebî jibo salixdana vê debdebê:

"Di vê qesrêde eywanekî hebû,çaralîyên wê camêkankirî bû.Ji menzela xezînê diketinê.Hemî paceyên wê li baxçe dinêrin.Pace bi qefesên tûnc û hesinî bûn û seranser neqşandî bûn.Ev hemî diyariyên xanên farisên Tebrîzê bûn ji Evdal Xan re."

Di nîvê eywanê de,hewzekî jî sêsed avavêjkên(fiskiye)xwe ava zelaltirîn heta qubbê hildavêt.Qewraşên ciwan hemî cariyeyên Çerkez û Gurcî bûn fîstanên wan,kemberên li pişta wan û xencerên ku ew dixemilandin,hemî bi kevirên giranbiha û bi zînetan neqşandî,her yek ji wan bi hindikî hezar quriş dikir. Gava ku hun awaha wan,bi qapqapkên sedefkirî,di xizmetê de dibînin hunê bibêjin qey ew çivîkên Bihuştê(Cennetê)ne.Ev qewraş biqedirgiraneke mestirîn pêşmalkên hevrîşim û qapqapkên sedef tînin ji yên ku serê xwe di şon.Ji vê eywana camekankirî meriv dikeve yeka din,bi qubbeyeke mezin girtî ,ku jê re"Eywana Hênikker"dibêjin û çar diwarên wê bi mîxan(bizmaran)xemilandî ne. Ev qubbe çendî zexm e ku bi hezeran ronîderk û awîze pêve daleqandîne. Ji vê eywanê meriv digihê hemamê.

Gava ku meriv dike vê,dibêje qey di ronahiya esmanî de xerqdibe,jiber ku li dora vê qubba ku heta ferîşteyan(melekan)hildikişe tu şopa diwaran ne xuyaye.Qubbe çibigre bi temamî li ser stûnan avakiri ye û navbeyna stûnan bi krîstal; aqût û kevirên kêmderên saftirîn û biriqoktirîn neqşandi ye, wilo ku dema ku tîrêjên rojê dikevin ser wan,hindurê hemamê bi herikandinên rengarengên roniyên delal tê dagirtin.

Di nîvekê de hewzekî mezinî bi avavêjk cih digire.Zemîn ji perçeyên eqîq,feyrûz, gewher û kevirên Ceylanê, yên wekî çavê çivîkê gir,hatiye neqşandin.

Qurne ji mînê ne. Heçî kanî,ew hemî zêrîn an zîvîn in.Bi temaşa cariyeyên wekî rojê bedew ku li ser laşên xwe yên tazî pêmalkên sorên hevrîşimî dilefînin û bi lûfikên xwe yên ew qas xweşbîhndar bi qedirgiranî bi meriv bilî(mijûl)dibin hişê meriv dike ji serê meriv here.Bîhnên delaltirîn hildikişin ji bixûrdankên bi teşeyên cihêreng ku tê de ji her textîtî giyayên bîhndar dişewitin.

Xulamên we yê aciz di çil û yek salên ku li rûyê erdê bihartibû tucar tiştekî awaha nedîtibû. Xwedê zane ev hemî bi çi bihayî bûn? Heta di hate gotin ku gava Sultan Murat,fatihê Bexdayê, hatibû xwe li vêderê biço,gulav herikîbû ji kaniyên ava sar û ji kaniyên ava germ aveke bixûrdar .Pênc reşik di yek ji menzelan de xizmeta wî kiribûn û pênc keçikên xwediyê bedewiyeka bêhempa di menzelekî din de ihtimamên çêtirin û delaltirîn nîşî wî dabûn. Sultan Murad ew qas kêfxweş bûbû ku nikaribûye xwe ragire û qîriyaye"Çima di Dar-î Saadeta min de jî hemamekî awaha tune ye!"Ev jî rast e.

(dûmahîk heye)

## RIZGARIYA JINAN

# DERDÊ XESÎ Û LÊXİSTİNÊ

Xwendevaneka me nvîsandina jêrîna li ser rewşa jina kurd şandiye me.Em wê bê guheran din çap dikin û hêvîdarên ku ewê rojekê zûtir "derd û kulên " jinên Kurdistanê sivik tir bibin,ewê wekhevîya jin û mêran saz be.

Hejmarekî AZADÎ yê ket destê min.Hun dibêjin:"Jinên Kurdistanê AZADI kovara we ye;pir sên xwe,derd û kulên xwe ji me re binivîsînin"Derd û kulên me pir in;nakevin kovar û kitêban.Kîjanî bêjî kîjanî nebêjî?Dîsa ezê bi çend rêzan mîsalekî koletî û bindestiya jinên kurd bidim pêş çavan.Bira neslên ku tên zanibin wextekî dê û xwişkên wan di çi halî de bû ne,çi kişandine çi nekişandine.

Vayê çîroka min.Berî çend salan ez keçekî bûm,xwediyê gellek xewn û xeyalan li ser bextiyariyê;niha jinebî û stûxwar im li mala bavê xwe!

Berya ku ez bizewicim,min û dergistiyê xwe ji hev gellek hiz dikir. Ez sê-çar meha bi xwestî mam,paşê daweta me kirin bi kêf û bi dîlan.Nav malê de sê gormên min hebûn,tevî xesî û xezûrê min . Kulfetekî giran bû Bûka salê ez bûm , loma giraniya kar jî li ser stûyê min bû.Ez qewraş;bişkûrî,navmalî,kevanî bûm.Berav,fraxşûştin xwarên pehtin,karên malê,ji sibê heta êvarê ez ji kar pê re nedigihîştim;çavê min ji kar venedibû. Xwezî qenebe dilxweşî û aqûbet hebûna! Lê li kur e aqûbet? Ew bizorê mehekî dom kir.Piştî vê meha şêrîn,nava min û mêrê min berebere nexweş bû.Xesîya min nav di kurê xwe dida digotê:"jina te bi xebera min nake" . Wî jî min dikir menzelekî û bi daran li min dixist.

Her wekî hun jî dizanin,welatê me da pir tiştekî ecêb e ku bûk jinebî vegere mala bavê xwe.nava malê da teva gellek zordestî li min dikirin,lê min ji tirsa dengê xwe nedikir . Min ne dixwest destê min û mêrê min ji hev bibe.Lê derdê wan ne yê kişandinê bû.Gava ku mêrê min dihate malê xesûya min fesadiya min dikir û wî jî bêpirs li min dixist,ber çavên min reş dikir,serê min dişikand.Heke yekî birînên min bidîya xesûya min digot:li erdê ketiye.Ez weke dîlekî,hêsîrekî li ber destên wa bûm.Lê evana hemî ji cahilî û nezaniya mêrê min bû.Rojekî min xwast, pêre xeber dim,bi zarekî xweş,bi awê merrivan ne bi yê hov û hirhopan,pê bidim fam kirin ku ez jî meriv im,ne kevir im;ka ji bo çi vê zordestiyê li min dikin.Enirî , har bû,sê kevirên xwe avêt,min şand mala bavê min.

Em dibihîzin û dixweynin ku li welatên din kes îndî li dewara jî naxe.Lê li ba me hê hin kes ji nezanî û hirhopî yê lêxistina jina mêranî hesab dikin. Ew nizanin ku mêranî îro zanîn e;çi jin çi mêr,wekî hev wek hevalan,wek merivan jîndin e.

JINEKA SORESGERA
▲ KURD ▲

## KEYO

Ey keçê rabe bixwîne da tu serbest her bijî,
Zû ji xew tû ser hilîne bes bimîne bê mêjî.

Rêncbera hundir tu yî tim rind û jîr û zane be,
Bo te bêtir her divêtin xwendewarî,paqijî.

Wa hevalên te li her cî serbilind pêşve diçin,
Rabe ser xwe ey keça kurd serbilind bijî tu jî.

Ger bixwînî dê bidî xwendin tu ê hundir teva,
Ger nexwînî kes ji bo me êş û derdan nakujî.

Wa Cegerxwîn xweş dinalî da ko jin pêşve herin,
Da bibêjin her bijî kurd her bijî kurd her bijî.

...——... CEGERXWÎN

# BİNGEHÊN DESTPÊKİYÊN FELSEFÊ

G. POLITZER

## ▲ I. ÇIMA ME DIVÊ FELSEFÊ HÎNBIN ? ▲

Em dixwazin di vê pirtûkê(kitêbê) de bingehên destpêkî yên felşefa materyalîst[1]pêşkêş û raber kin.

Çima?Ji ber ku marksîzm bi awakî gellek nêzik bi felsefekî ve û bi azînekî(metodekî)ve girêdayî ye;yên materyalîzma diyalektîk. Loma hînbûna vê felsefê û vê azînê jibo qenc têgihîştina(famkirina)marksîzmê û jibo pûçkirina spartekên(delîlên)teoriyên bûrjûwa wisa jî jibo ajotina têkoşîneke siyasî ya çê pêwîst e.

Lenîn gotiye:"Bê teoriya şoreşger, tevgera şoreşger çê nabe[2]".Berî hemî, ev, dixwaze bêje;divê teoriyê bi pratîkê ve girêdin.

Gelo pratîk çi ye? Pêk anîn e.Mînakî,sanayî û erdçinî (zîraet)hin teorîyan (teoriyên kîmyewî,fîzîkî û bîolojîk)pêk tînin(ango dixin nav pêkahiyê,nav hebûnê).

Teorî çı ye?Ew naşîna tiştên ku em dixwazin pêk bînin.

Meriv dikare tenê pratîk be-lê hingê meriv timî bi eynî awayê hinbûyî pêktîne.Meriv dikare tenê teorîk be-lê hingê yê ku di hişde tê danîn pircar ne pêkanînok e[3]Lewra divê ku di nav teorî û pratîke de peywendiyekî hebe.Pirsiyar hemî zanîn e ka ev teorî divê kîjan be û peywendiya wê ya digel piratîkê divê kîjan be.

Em bawerin ku ji milîtanê karker re azîneke dahûrînîyê (analîzê)û hişwerîniyê(muhakemeyê)rast divê jibo pêkanîna keftelefteke şoreşgêra rast.Jê re azînekê divêt ku ne olweriyeke (dogmayeke) ku bersivên(cewabên) çêkirî û amade dide wî,lê azîneke ku kirin û şertên ku tucar nejihevin,têxe hesabê,azîneke ku tucar teoriyê ji piratîkê,hişwerîniyê ji jiyanê veneqetîne. Lewa ev azîn (metod) di nav felsefa materyalizma dîyalektîk, hîmê marksîzmê,de ye ku em dikin raber kin.

## II. HÎNBÛNA FELSEFÊ TIŞTEKÎ DIJWAR E ?

Giştane tê bawerîn ku hînbûna felsefê jibo karkeran tiştekî tejî dijwarî ye,nasînên taybetî(xisûsî)dixwaze.Divê ku em mikur bê ku pirtûkên bûrjûwa bên awakî wilo hatinê nvîsîn û çikirin ku ew wan di wan reman û bîran de teyid dikin û tenê dikarin wan jê birevînin.

Em na xwazin dijwariyên(mişkileyên) ku bi giştî di hînbûnê de û bi taybetî,di ya felsefê de hene înkar bikin;lê meriv dikare bi ser van dijwariyan keve, û ew piranî ji vê yekê tê ku ev tiştên han jibo gellek xwen devanên me nû ne.

Hê di destpêkê, de emê ji xwe gazî wan kin ku ew manayên hin gotina ku peyivandina rojane de guhurîne ji nûve bidin hişê xwe.

*(dûmahîk heye)*

*Georges Politzer (1903-1942):bîrewer û fîlozofê markîstê şoreşgerê fransizî (bi eslê xwe macar) Yek ji pêşajoyên belavkirin û hînkirina materyalîzma materyalîst li Fransayê. Li Zanîngeha karkerî ya Partîsê dersên felsefeya materyalîst da ye.Milîtanê Partiya kommunîsta Fransayê.Di sala 1942 an Alman ew ji ber xebata wî ya nav Berxwedan ê dijî Naziyan gulle kirin.*

1. *Materyalîst:ji matiêre;dend,gewher,madde.Kurdiya maryalîst dibe dendîwer,lê her wekî gotina materyalîst bûye navnetewe-yî,di zmanê felsefê de bicih bûye me di şûna dendîwer de materyalîst danî(nîşeya werger)*
2. *Lenîn:Que faire (Çi bikin?)Edition, Sociales1947,r.26*
3. *Pêkanînok! ê ku dikare bê pêkanîn.*

HEJMARA KU TÊ:

FELSEFE ÇÎ YE?

FELSEFA MATRYALÎST ÇÎ YE?

# ENIYA XWENDEKARAN

Ji ber kêmasiya cih û zêdebûna pirsên acîltir em bendên xweyên li ser pirsa AKSA yê û Xebata Yekîtiya Xwendekarên Kurdîstanê li Fransayê dihêlin carekî din. Îcar tenê di karin hin keriyên du belavêkên li ser şerê hindurê Kurdîstana Îraqê derketî, di stûnên xwe de çap bikin.

A Z A D Î

## Fransa

*BES E HUN BÛN LEYÎSTOK JI EMPERYALÎZMÊ RE,*

*BES E WE XWÛNA HEV RÊT.*

*Gelî Hevalan! Her wekî ku hun dizanin ji destpêka meha hezîranê vir da, hinek nûçeyên li ser şerê di nav Kurda da tê nivîsandin.*

*Em tev da dizanin di şerê Îrakê da jî ê ku bi Barzanî û grûba Barzanî leyîstemperyalîzma Amerîkayê û Faşîzma Îranê bû. Ewan xwûnmijên han piştî şkandina şoreşê dîtin ku Kurd gî nehatine kuştin, û armacên wan nehatine cîh. Îro jî dixwazin bi hinek cam bazîyên din wan armacên xwe pêk bînin, û Kurda bi hev bidinkuştin û wendakirin.*

*Em ji wankesên ku li hev dixin, hev di kujin dipirsin: Gelo hun bi rastî bawerdikin ku ewê Amerîka û Îran we xelas ke? Yan hunê bi arîkariya wan Kurdîstanê azad kin? (...) Lê ji bîr mekin ne Şahê faşîst ne jî Emperyalîzm we xelas nake. Ew ji bo demek din jî xwe li piya bigrin, we berî hev didin.*

*Em ji wan kesan dîsa dipirsin: Gelo hun bawerin ku Sûriye bi rastî arîkariya we dike û dixwaze hun xwe xelaskin yan Kurdîstanê azadkin? Ku hukumeta Sûriyê bi rastî arîkariya we dike boçi şoreşgerên Kurd di hepisxanên Sûriyê da riziyan? Boçi bi seda Kurdan ji Kurdîstanê sirgûn dikin? Boçi navên gundên Kurdîstanê dighurînin erebî? (...)*

*Grûbên Barzanî, grûbên Talabanî! Bes e hun ji emperyalizmê re bûn leyîstok, bes e hun li dû van faşîstan çûn, bes e we Kurda bi hev da kuştin. (...)*

*Hevalên delal! Dibê ku em pir baş zanibin, feodalîzm, şêxîtî, begîtî, axatî nikarin gelê Kurd û Kurdîstanê azadkin.*

*EWÊ KARKER Û COTKAR'ÊN GELÊ KURD KURDÎSTANÊ AZADKIN !*

*BIJÎ ŞERÊ GELÊ KURD BO RIZGARIYA KURDÎSTANÊ !*

*BIJÎ KURDÎSTANA AZA YEKBÛYÎ Û SOSYALÎST !*

*Yekîtiya Xwendekarên Kurdîstanê li Fransa.*

*Paris../ 7 /78*

## Berlin

Di van rojên dawî de xeber ji welêt têne ku careke din şerê Kurdan dikine(..) mêran ji hev gêrdikin! Her aliyek sûc davêje ser aliyê din. Lê pirsa vî şerî xuya ye ku bi awakî din e. Bivê nevê destê neyaran di vî karî de heye û tiştekî gelek ne baş e.

*Dîroka gelê Kurd di de xuyanîkirin, ku rizgarkirina gelê Kurd, ya netewayetî û çînayetî ji hev nayên birîn; û ji ber wilo jî çîna derebeg û bûrjûwaziyâ Kurdî nabin ku serokayetiya tevgerê bikin, ew hergav amade ne, ku destên xwe bidin dujminên gelê Kurd.*

*—Hêzên bingehîn, ji tevgerê re, zahmetkêşên Kurd in-ramanên tevgerê pêwîstin ku ramanên çîna karker bin. (...)*

*—Hev karî li gel ew rêjîmên ku gelê Kurd di perçiqînin ne rast e û gava hêzekî siyasî Kurdî li gel wan kar bike, guman dikeve nîştîmanperweriya wî.*

Riya SERBESTÎ û AZADÎ yê JI NAV KOMA KARKERAN DEST PÊDIKE!

Bijî Têkoşîna Gelê Kurd jibo bicîhanîna mafê çarenûsînê! (...)

Yekitiya Xwendekarên Kurdistanê li Berlînê

AKSA-B

Venîşa Azadî yê: Hevalên Berlînê tiştên çê û hêja dibêjin. Tenê du pirsên piçûk: 1°Kî ne ev hêzên ku ji niştimanparêziya wan guman tê kirin? 2°Bi wan re di bin banekî, di nav komeleyekî de civîn tiştekî rast e?

**XWENDEKARÊN ŞOREŞGER YEKBÎN!**

# Gelê Kurd du winda kir

## KURDİSTANA ÎRANÊ:

# AZÎZ YÛSEFÎ



Nvîskar,rojnamevan û şoreşgerê Kurdê hêja Azîz Yûsefî di destpêka hezîranê de li Tehranê mir.Azîz Yûsefî kevintirîn girtîyê siyasî yê Iranê bû.Li serhev BÎST Û PÊNC SAL ên jiyana xwe di zîndan û girtîgehên şahê zorkar de derbas kiribû.

Gelê kurdê Iranê bi rojan şîna Azẑ Yûsefî girt.Li Mehabadê,qasî bîst hezar kes,di şertên çendî dijwarên faşîzma şahî de,bêtirs li ser gora wî civiyan;li ser şoreşgerîya wî,têkoşîna wî,gelhizî û welatparêziya wî gotar hatine gotin Li şah,savak û xulamokên wanên ku ji mirina Azîz Yûsefî berpirsiyar in lanet barandin.Xelk diqîriya, digot:"KURD NAMIRIN ! KURDISTAN NAMIRE!AZÎZ YÛSEFÎ NAMIRIN!MIRIN JIBO ZORKAR Û XWÎNXWARAN E,JIBO DIJMINÊN XELKÊ YE!"Yên ku li ser gorê bikel dipeyivîn zanibûn ku ewê bên girtin,bên êşandin,bikevin zîndanan.Lê ne tirsiyan.Kela dilê xwe ya ku li ser dilê gelê kurd civiya ye hêdî kirin,rêtin.

Azîz Yûsefî,cara pêşîn di 1948an de, çend meh piştî pelişandina Komara Mehabadê hatibû girtin. Hingê ew hê xortekî bîst û du salî bû.Lê bi qelema xwe bi zimanê xwe,bi milên xwe karekî hêja kiribû jibo komara Kurda.

Di 1952 a de, di dema Mossadeq de ji zîndanê derket.

Sêsal şûnde dîsa tê girtin.Piştî çend mehê azadiyê di sala 1957na de Şah dîsa Azîz Yûsefî û hevalên wî yên PDKa Iranê di de girtin û dixwazehin ji wan bidardake. Lê jiber tirsa serxwerabûnekî nû li Kurdistana Iranê, wî bi girtina timî dide mahkumkirinê.Ji hingê heta adara 1977an Azîz Yûsefî ji zindanekî tê şandin yadin.Borazcan,Babol, Xesser navên çend ji van sembolên hovîtî û zorkariya rejima Şah in.

Di sala 1976an de, hevdesaziya mirovhiz Amnesty International, wî dike"girtiyê salê" û di çapa Ewrûpayê de seferekî vedike jibo azadiya wî.Zane ye Belçîkî Pr.Louchard, ji Zanîngeha Bruxelles ê bixwe serê têkoşîna jibo azadiya wî dikşîne,rojnamevana dişînê Iranê da wî bibînin, şertên jiyana wî bidin nasîn.Ji nûçegihanê(muhabîr) rojname "Le Soir"re Azîz Yûsefî awa dipeyive:"Ev bûn bîst û pênc sal ku ez di zîndanê de me.Savak ji min re di bêje ji Şah efû bixwaze,emê te berdin.Lê yê ku efûyê bixwaze ne ezim."Jibo Azîz Yûsefî ji zorkaran efû û kerem nayê xwestin, bi wan re şer tê ki- Azîz Yûsefî nexweş bû,gellek janên wî hebû dixwast were Ewrûpayê li xwe bipirse.Evbûn çend meh li dû pasaportekî bû.Lê Şah û Savak,nehiştin.

Ewê mêrxasî,û şerkariya Azîz Yûsefî timî di bîra welatparêz û şoreşgerên kurd de be,navê wî jibo newşên (neslên) wêbêyê,yên Kurdîstana aza bibe yek ji sembolên meznahiya mirov li hember hêzên zorkarî, kevneperestî û tariyê.

# şorêşgerê hêja

## KURDİSTANA TİRKİYÊ

# MUHTEREM



Muhterem mir.Îcar rast e,sed mixabin! Ne wekî sala 1971an ku rojnameyên bûrjû waziya Tirk,wekî "Hürriyet" û "Milliyet ",bi fîta MITê kuştina wî û çar hevalên wî di rûpelên xwe yên pêşîn de bi manşetên gir mizgîn didan:"Barzanî pênc Kurd parêz û kommunîstên har da kuştin !"Îcar ,ew bi rastî ji nav me çû, me terikand.Ne bi destê MIT ê û ne jî bi yên paşverû û kevneperestên Kurd.Lê di qezakî rê de,di meha hezîranê de.

Kurdparêz û kommunîstekî çê bû Muhterem,wekî kelem bû di nav çavên hêzên kedxur û mêtîn gehparêzên (kolonyalîstên) Tirk,di nav singê sinifên serdestên Kurd , beg û axa û şêxan de. Ûji zû ve.Bi hindikî,ev bûn panzdeh sal.

Hingê, kesên ku li Kurdîstana Tirkiyê doza kurdîtiyê dikirin pirr kêm bûn ;çengekî bûn. Kesî newêribû gotina Kurd bîne ser zamanê xwe.Wilo ku, serekê sazûmana leşkerî,General Gursel, yê ku bixwe jî bi eslê xwe Kurd bû, di 1960 a de li Diyarbekirê,li pêşberî dehhezaran Kurdên civiyayî diqîriya;" Tû kin rûyê yên ku ji we re di bêjin Kurd!Hun Tirk in,Tirkên çiya!"Kesî newêribû dengê xwe derîne.

Jiber dijwariyên têkoşînê,ji tirsa girtîgeh,zîndan,kuştin,perîşanî û ji karê xwebûnê,ji kesên ku wê çaxê doza kurdîtiyê dikirin gellek vegeriyan, dest ji kefteleftê kişandin.Hin li mala xwe rûniştin bi karê xwe bilî bûn, hin bi kelûbîn xwe dan beza dewlemendbûnê,bûn milyoner xwedî mal û milk , serê hinekan di AP û CHP ê de derket , hin kurdîtiyê ji xwe re kirin pêpilûk jibo bilindbûn û ciyê xwe girtinê,hwd...

Muhterem yek jiwan kesan e ku ji doza gelê Kurd venegeriyan,hebûna xwe,wextê xwe,canê xwe dane vê riyê.Li dinê herkes tiştek dihebîne, tiştek li ber dilê wî şêrîne,yê Muhterem doza Kurdîstanê bû,ya rizgariya gelê Kurd bû.Karê wî ev bû ;jiyana wî ji vê bûnê bû.

Panzdeh sal in li kuderê mîtîngekî , meşekî,şevekî çandî hebûna.Li kuderê hevalekî di tengasiyê de bûna,Muhterem li wê bû.Pir caran digot:Karê hinekan etarî ye,tîcarî ye, doktorî ye,evûqatî ye, yê min jî karê min şoreşgerî ye. Heta ku jimilên min tê,heta ku hilm di qefesa min de hebe, ezê jibo gelê Kurd bixebitim,çi ji min bê ezê bikim.Ku ez ketim jî,ewê yên ji min çêtir ala me pêş ve bibin .

Yên ku wî bi nêzikî naskiribin,hevaltiya wî kiribin,dilsozî,rastgoyî,fedakarî,nefspiçûkî,mêranî û xweşhevaliya wî tu car ji bîr nakin.

Ew şoreşgerekî ji xelqê bû,ne begzade û şêxzade û ne jî ji yên ku xwe "bîrewer"(entellektuel) dihesibînin bû.Gava ku bawerî bianiya ku hevalekî jê çêtir dizane, xwe pê digirt û carna bi wan re gavên şaş û xelet da vêt di riya nenasa rizgariyê de(tenê yên ku li mala xwe rûdinên tu şaşiya na kin. ▶▶

Yên ku dilivin,dime şin ewê carna şaşiyan bikin.Şoreşger ne ew e ku tu şaşiyan na ke,ev nemimkine,lê yê ku şaşi yên xwe dibîne û wan rast dike ) Bi gellek hevî û xewnan bi Dr.Şivan û hevalên wî re çûbû Kurdîstana Îraqê,jibo xebatê. Li wir bereber e xwezaya(tebieta)paşverûyaserokatiya tevgera Kurdên Îraqê dîtibû û bizorê ji kuştinê filitîbû.Pêlekî li Ewrûpayê şarederî ma bû,dûre di 1974 an de vegeriyabû Kurdîstanê û liwir,gava ku ne di gitîgehê de bûna di nav qada xebata siyasî de bû.Herwekî pirr xweş zmanê kurdî nasdikir,carna xebata çandî jî dikir, hin hel bestên şoreşger (yên Ahmet Arif,Nazim Hikmet,hwd..)ji tirkî werdigerand.Wî wisa jî "Zewaca Bêdil"ê Smaîlê Dûko,ji tîpên rûsî kiribû kurdîya latînî.

Muhterem di demekî wisa de mir ku ew îndî di nav xebatê de pijiya bû,gihîştibû, têr çeliqî bû;rê û dirban, merivan naskirîbû,bûbû xwedî ceribândin û di xebata rojane da,di ya pratîk de,şoreşgerekî bêhempa bû.Ewê hê teze biketa 35 saliyê.Bi mirina wî,sterkekî geşê hêviyê ji esmanê Kurdîstanê xuricî.

Xemgînî û dilkovaniya heval û hogirên wî giran e.Ewê tim di bîra me de be.Ewê tim di dilê me de wekî tîrêje ke fedakarî,dilsozî,şoreşgerî û mêrxasiyê bi çirise,herûher bijî.

# Deng û Alan

**LE MONDE :** *Rojnameya navdar a fransiz di hejmara xwe ya 27.7.1978 de bendekî mezin(rûpelekî) li ser rewşa Kurdên Tirkiyê derxist.*

● *Di hejmara 11.8.1978 de bendekî li ser romana "Giyayê nemir",ya û peyiveki digel nivîskarê wê Yaşar Kemal derket.Tê de Yaşar Kemal dibêje ku dê û bavê xwî her dû jî Kurd bûn û li malê bi Kurdî xeberdidan.Lê ew bixwe doza Kurdîtiyê nake.Rast e ku îro ro,kurdîtî kaniya derd û bela û sergêjahiyane.*

● *Radiyo ya Fransa çend roj li dû hev li guh darên xwe şîretkir ku herin rabert(teşhîrk)nû ya Wênekarê (resamê)Kurdê navdar REMZI bibînin. Ev raberiya teze,li muzexana bajarê Dourdanê di şatoyekî de hatiye vekirin û pirr raxbet dibîne.*

**ROUGE :** *Rojnama kommunîsta anvnetewyî (enternasyonal)di hejmara xwe ya du rûpel cih dide peyivekî digelGérarl Chaliand,sekreterê Gîştiyê Komela Fransa-Kurdîstan ,nvîskar û milîtanê antî-emperyalîst fransizî navdar.Tê de (Chaliand qala rewşa niha ya Kurdîstana Îraqê dike.Rouge bi pesindarî ji pirtûka nû derketî "Les Kurdes et Le Kurdîstan" Xeber dide û xwedina wê bi germî li milîtanan şîret dike.*

● *Kongera zmanên hindikahiyan (eqaliyetan) di destpêka tebaxê de li bajarê katalanî Barcelone (Ispanya) gizîrên 18 gelên bindest civîya.Li ser gelê Kurd biryarên (qerarên) çê hatin stendin.Rojnameyên Barcelonê,Mundo Diario (2.8.1978);Avui (3.8.1978),El Noticiro Universal wî yên jibo azadiyê bendinê dirêj û hêja çap kirin.*

● *The Economist,rojnameya ingilîza navdar di hejmara xwe ya 24.6?1978,bendekî derxist li ser şerên Kurdîstana Iraqê.*

# BEND Û PİRTÛKEN NÛ

● Les Kurdes et le Kurdistan (Kurd û Kurdîstan):G.Chaliyand,A.R.Ghassemlou,Kendal, M.Nazdar,A.Roosevelt,I.C.Vanly. Pêşgotina prof.M.RODINSON,F.Maspero,Paris, 1978;352r.65 FF.

● Şekirê Xudo;Problema natsiyonalnoy avtonomii kurdskogo naroda v Irakskoy Respublike(rûsî).(*Pirsiyara Xwegeriya-otonomiya-neteweyiya xelkê Kurde li komara Iraqê); teza doktorya zana û dîroknvîsê me yî hêja Şekiroyê Xudo,endamê bêşa kurdî ya Akademîya Zanîstî ya Ermenîstanê Moskova;1978.*

● *Prof.Heciyê Cindî;*Şaxên eposa "Rustemê Zalê" kurdî.(bi kurdî)Erîwan,1978.

ÇAPA KURDÎ BİXWÎNE,

# pirtuknasî

Va ne navê çend pirtûkên ku di van salên dawîn de li ser Kurd û Kurdîstanê derketine.

● Celîlê CELÎL,Kurdî Osmanskoy lmperii v pervoy polovîne XIX veka (Kurdên Împaratoriya Osmanî di nîvê pêşînê sedsala XiXa de)Akademiya Zanistiyên Yekîtiya Komarên Sosyalîstên Sovyetîyê(YKSS),Moskova,1973,194r.(bi-rûsî).

● M.Lazarev,Kurdskiy Vopros (Pirsiyara Kurdî).Akademiya Zanisteyên YKSS,Moskova,1972,485r. (bi rûsî).

● Basîl NIKITINE.Les Kurdes (Kurd),çapa teze bi destê Komela Fransa-Kurdîstan,Parîs,I975,351r (bi fransizî).

● Ismet Şerîf Vanly,Le Kurdîstan Irakien,(Kurdîstana Iraqê). Neuchatel1970,418r.(bi fransizî)

● Jürgen Roth.Aufstand in Wilden Kurdistan(Serxwerabûndi Kurdîstana kûvî de),Signal-Verlag, Baden Baden,1977,160r.(bi almanî)

●Hans Hauser,Kurdistan,Schicksal eines Folkes (Qedera xelkekî) Langen Müller,Mñchen,1975,280r. (bi almanî)

●Heinz Gstrein,Volk ohne Anwalt (Gelê bê parasker).lmba / Laetare,Freiburg,1974,136r.(bi-almanî).

●Haraldson,Erlender.Med uppreisnar mö nnum;Kurdistan,182r. (bi swêdî).

●Aksentijevic,Mirko.Kurdî,Borba za Autonomiju (Kurd,Şerê jibo Otonomiyê ) Belgrad.(bi serbî).

● Bibliografiya po Kurdovedeniyu (Pirtûknasiya Kurdizaniyê) ya ku Akademiya Zanîsteyên YKSS çap kiri ye navê 2690 pirtûk û bendên li ser Kurda hatine nvîsîn dide.Moskova,148r.

● ISK's Kurdish Bibliography , Amsterdam,656r.navê 9350 bend û pirtûkên ku di çil zmanan de li ser Kurd û Kurdîstan,hatine nvîsan dide.

-----

● Pradier,J.O. Les Kurdes,Revolution Silencieuse (Kurd Soreşa bê deng),Bordeaux,286r.(bi fransizî).

● Schmidt,Dana Adams,Journey Among Brave Men (Ger li nav mêrxasan),Boston,298r.(bi amerikani)

● Adamson David.The Kurdish War (Şerê Kurd),London,216r.(bi ingilîzî).

● Ghassemlou A.R.Kurdîstan and the Kurds(Kurdîstan û Kurd),Akademiya Zanîsteyên Çekoslovakyayê, Praha.

● R.Mauriès.Le Kurdistan ou la Mort(Kurdistan an Neman),Parîs. 236r.(bi fransizî).

# Çapa Kurdî

Bi zmanê Kurdî û tîpên latînî bilî Azadî yê tu kovar dernakevin. Va ne navên yên ku bi tîpên din dertên.

● Riya Teze,ji sala 1930 a bivir de li Erîvanê di heftê de du car derdikeve.4r.Organa PK a Ermenîstanê.

● Kurdîstan,organa PDK a Iranê ji mehê carekî bi tîpên erebî dertê.4r.(bi çapa farisî jî dertê).

● Bîra nûw;organa Partiya Kommunîsta Iraqê,bi tîpên erebî dertê.

Kovarên ku bi du Zman dertên.

● Rizgarî,bi kurdî-tirkî li Tirkiyê dertê.Hejmara pêşîn di adara I976 a de derketiye.Heta niha 6 hejmar çap bûne.Her hejmarekî 130-140 rûpel e.

● Roja Welat,bi Kurdî-Tirkî li Tirkîye dertê.Heta niha 8 hejmar çap bûne.Her hejmarekî 16 rûpel e.

● Kovara Özgürlük Yolû(Riya Azadî) ku hin bîrewerên Kurdên pêşverû ji hezîrana 1975 bi vir de ji mehê carekî derdixin,carna bi kurdî bendan li ser zman û wêjejê (edebiyatê)çap dike.

**BİDE XWENDİN Û BİPARÊZE !**

# ZMAN

# Ferhengok

Zmanê xelkêyê rengîn û zengîn, kurdî hê ne bûye zmanekî zanîs tî;dewlemendîn û pêşvebirina wê divê.Her wekî ku kêm tê xwe din,di xwendegahan de nayê hîn kirin,têde cihêbûnên zaravan h ne.Lewra bi kurdî bendên siyas nvîsandin û xwendin,di despêkê de piçkî dijwar xuya ye.Hin go tinên ku di bendên me de hatin bikaranîn heye ku ji hin xwend vanan ve nenas bin.FERHENGOK a Jêrîn jibo wan e.Gotinên kurdî bi wergerandina tirkî(t) û fra sizî(f) hatine dayîn.

Aborî:*(t)iktisat; (f)économie*
Arizî:*(t)özel; (f)privé*
Azadî:*(t)özgürlük;(f)liberté*
Belavok:*(t)bildiri;(f)communiqué*
Bêş:*(t)vergi; (f) impôt*
Civak: *(t)toplum; (f)société*
Civakî:*(t)toplumsal; (f)social*
Deryavanî:*(t)denizcilik; (f)navigation*
Dirav:*(t)para; (f)monnaie,argent*
Diravgîr:*(t)ücretli; (f)salarié*
Dîrok:*mêjû,tarix (t)tarih;(f)histoire*
Enî:*(t)cephe; (f) front*
Firotişk:*(t)eşya; (f)marchandise*
Geşbûnî:*(t)gelişme; (f)dèveloppement*
Gewşîn:*(t)özellik; (f)propriété particularité*
Girîng:*(t)önemli; (f)important*
Giştî:*(t)genel; (f)général*
Gizîr:*(t)temsilci;(f)dèlégué*
Hevrayî:*(t)ortak;(f)commun*
Hevdesazî:*(t)örgüt;(f)organisation*
Heyok:*(t)nesne; (f)objet*
Hilberandin:*(t)üretmek;(f)produire*
Hilberî:*(t)ürün;(f) produit*
Hilberinî:*(t)üretim;(f)production*
Hilfir:*(t) (f)essort*
Karciv:*(t)korporasyon;(f)corporation*
Kardar:*(t)işveren;(f)employeur*
Karxwe:*'t)patron;(f)patron*
Kedxur:*(t)sömürücü;(f)exploiteur*
Kedxurî:*(t)sömürü;(f)explotation*
Kevneperest:
Komava: *(t)tutucu;(f)conservateur*
Komele:*(t)dernek;(f)association*
Komik:*(t)grup;(f)groupe*
Maf:*(t)hak; (f)droit*
Mêtîngeh:*(t)sömürge;(f)colonie*
Mêtîngehparez:*(t)sömürgeci;(f) colonialist*
Mêtîngehparezî:*(t)sömürgecilik. (f)colonialisme*
Mînakî:*(t)örnegin;(f)par exemple*
Navgîn:*(t)araç; (f)moyen*
Nijad:*(t)irk; (f)race*
Nîşe:*(t)not; (f) note*
Nûjen:*(t)modern;(f)moderne*
Paşverû:*(t)gerici;(f)reactionnaire*
Pêkahî:*(t)gerçeklik;(f)réalité*
Pêkanîn:*(t)gerçekleştirmek;(f)réaliser*
Pêşverû:*(t)ilerici;(f)progressist*
Peywendî:*(t)ilişki;(f)relation*
Peyweng:*(t)alet;(f)outil,instrument*
Pîşe:*(t)sanat;(f)art*
Pîşekar:*(t)sanatkar;(f)artiste*
Pîşewar:*(t)zanaatkar;(f)artisan*
Rizgarî:*(t)kurtuluş;(f)libération*
Semyan:*(t)ihtişam;(f)magnificience*
Servebûnî:*(t)keşif;(f)découverte*
Serwer:*(t)egemen;(f)souverain*
Serxwebûn:*(t)bagimsizlik;(f)indèpendance*
Suxre:*(t)angarya;(f)corvée*
Taybetî:*(t)özel;(f)particulier*
Teşe:*(t)biçim;(f)forme*
War:*(t)alan; (f)domaine*
Xwedanî:*(t)mülkiyet;(f)propriètè*
Xweger:*(t)özerk;(f)autonome*
Xwemeş:*(t)otomat;(f)automate*
Xweza:*(t)doga;(f)nature*

---

ZMAN-FERHENG:


● Celadet A.Bedir Xan,Roger Lescot,Grammaîre Kurde(Gramera Kurdî),Paris,1970,372r:(Bi fransizî-Kurdî)
● Kamouran A.Bedîr Khan,Langue-Kurde(Zmanê Kurdî)253.Paris(bi-fransizî)
● I.O.Farizov,Russko-Kurdskiy Slovar(Ferhenga rûsî-kurdî),Moskova,782r.30.000 gotin.
● Qanatê Kurdo.Ferhenga Kurdî-Rûsî,Moskova,890r.34.000 gotin.
● Tawfiq Wahby Bey.Kurdish-Enlish Dictionary.(Ferhenga Kurdî-Inglîzî)London,180r.
● Joyce Blau.Dictionaire Kurde,Français-Anglais.(Ferhenga-Kurdî-Fransizî-Inglîzî).Bruxelles,263r.

# HELBEST

## Cegerxwîn

Sinifên serdestên Kurd hem bi gur re dixwin hem jî bi xwedî re şînê dikin.Ev helbista Cegerxwîn li ser vê yekê ye.

### ÇÛNA QUNSILXANA TIRK GUNEHKARIYE BEGIM.

Begim,çûbû kû?
Îşê te çi bû?
Bêje begê min,
Ka we çi kiriye?
We kes nedî qet?
Begim xuya ye
Çima bitirsim
Li her der karim
Ji kerema xwe
Şerme bese lo
We qunsil nedî?
Belê li we kir
Bestê xwe da we
Destê ko Extî
Ew destê ko kuşt
Zana û gernas
Destê bi xwîna

Çûbûm e Heleb.
Wilo bê sebeb.
Çi bêjin canim,
Qet ez nizanim
Çima dipirsî!..
Gelek ditirsî.
Ha ha aferim,
Serbest bigerim.
Bêje ezbenî.
Bi min dikenî.
Ha! qunsilê Tirk
Wî xelat û kurt
Ew destê gemar
Hildaye ser dar
Sed wek şex Seîd
Mêrxas û egîd
Kurdan bûye sor

Çawa te hejand
Her kesê bi hîst
Milet nade ser
Navê we ye bes
We miletê Kurd
Lê ne raza ye
Wî zincîr şikand
Bi we nayînî
Ji dijmin re ew
Canim bes e lo,
Raste ne Kurdî
Ji xwe ne Kurdî
Hun miletê Kurd
Ezê herim lo
Ji bo we gotin
Here ez benî
Milet,hemî Kurd

Hey rêberê kor
Dengê topa we
Rêç û şopa we
Remza istîmar
Siparte neyar
Şîyar e millet
Ji dest we derket
Îdî bawerî
Qet nabî terî.
Îdî ez ne Kurd.
Tu bûye zigurd
Hemparê dijmin
bihev re dixin
Hişim ne ma ye,
Ne pir seza ay
Here ez benî
Bi we dikenî.

## Elfabe

Ji salên 1930an bivir de zmanê kurdê bi tîpên(herfên)latînî tê nvîsandin.Elfabeya latînî xweş li zmanê me te û ewê bêgûman bibe ya hemî Kurdan.Lê niha jiber sedemên cihê reng piraniya Kurdên Iran û Iraqê tîpên erebî,yên Sovyetistanê jî tîpên rûsî bikartînin.Jibo agahdariya xwendevanan va ne ev her sê elfabe.

| Latînî | Rûsî | Erebî | Latînî | Rûsî | Erebî |
|---|---|---|---|---|---|
| A | А | ا، أ، آ، ع | N | Н | ن |
| B | Б | ب | O | О | ۆ |
| C | Щ | ج | P | П | پ |
| Ç | Ч | چ | Q | Q | ق |
| D | Д | د، ض | R | Р | ر |
| E | Ә | ا، ە، ـَ، ع | S | С | س، ص، ث |
| Ê | Е | ێ، ێ، ی، ع | Ş | Ш | ش |
| F | Ф | ف | T | Т | ت، ط |
| G | Г | گ | U | Ӧ | ـُ، و |
| H | Һ | ه، ح | Û | У | و |
| I | Ь | إ، ـِ، ـِ، ی، ع | V | В | ڤ |
| Î | И | إ، ی، ی | W | W | و |
| J | Ж | ژ | X | Х | خ، غ |
| K | К | ك | Y | Й | ـِ، ی |
| L | Л | ل | Z | З | ز، ذ، ض، ظ |
| M | М | م | | | |

**KURDÎ BİXWÎNE, HÎN BİBE, HÎN BİKE!..**

# * Stran û Leylan * *

AZADÎ,jiho qenc nasîna mûsîkiya kurdî sêlik(plak) û kasetên hiqalfte hidest dixe,dadiqre û dif roşe.Ji niha ve hun dikarin yênli jêrê binavkirî ji me bixwazin.
-Sêlika kurdî.

Bijarteyên Folklorê-1
Meqamên kevn bi Orkestra nûjen.

*Lêdixe Orkestra gelerî ya Kurdîstanê.*

RÛYÊ A:
&.Dêresorê Piçûkê(Solîst:Zadîna Şekir).&.Çavreş çavreş bona te (Solîst:Têmûrê Talê).&.Memir me mir (Solîst:Eyşe Şana Kurdî).&. Heft sal temam li hêviya te mam (Bêmalê Keko).&.Lê Pîrê (Solîst Xemoyê Hesen).&.Eman eman Zekiya (Dawidê Xilo).&.Yar gulê (Solîst Zadîna Şekir).&.Mala Ximşê(Kom). &.Koçerî(Def û zirne).&.Bihar û Yar (solîst:Aslîka Qadir).&.Werdekî golî sor im (Kom).&.Delale min (Têmûrê Xelîl).

RÛYÊ B:
&.Nar nar narê can (Mecîdê Aslan Zadîna Şakir).&.Dîlan (Solîst:dawîdê Xilo).&.Nazo (Solîst:Dawidê Xilo).&.Hey Narê (Solîst:O.Bedelî).&.Ha Gulazer (Solîst:O.Bedelî).&.Hoy Nazê (Solîst:O.Bedelî) &.Tîringî (Def û Zirne).&.Romanî (Solîst:O.Bedelî).&.Melî(Solîst: Dawidê Xilo).&.Yar wele keçik e (Aslîka Qadir).&.Welatê me Kurdîstan e(Solîst:Aslîka Qadir).&. Sarê rabe êvar e (Solîst:Aslîka Qadir).&.Nazîyê lênazîyê (Xelîlê Evdile).

Bijarteyên Folklorê-2
Kulamên Dîlan-1

RÛYÊ A:
&.Xezalê (Şemoyê Hesen).&.Bêrîvanê (Efoyê Esed).&.Eyşanê (Celîla Çawûş).&.Bavê Seyro (Eyşe Şana Kurdî).&.Lawikê Metînî(Gerebêtê Xaço).&.Çiya Bilindin,te nabînim (Ş.Egît).&.Hekîmo (Seroyê Bro).&.Lê Lê Bêmalê (H.Huseyîn).&.Xozanê (Reşîdê Baso).&. Lê lê Ximşê (Kom).

RÛYÊ B:
&.Miho (Fatma Îsa).&.Sîyamend û Xecê (Egîtê Têcir).&.Şev tev çûye (Aram).&.Hesenîko (E.Têcir). &.Apo (Seyadê Şemdîn).&.Ereb Şênî (Dawidê Xilo).&.Lo lo Lawiko (Perîxzn ).&.Eman eman Zekîya (Dawidê Xilo).&.Welatê me Kurdîstan e (Kom,Solîst:Aslîka Qadir).

Bijarteyên Folklorê-3
Kulamên Dilan-2(SranênEvînê)

RÛYÊ A:
&.Kalo (Dawidê Xilo).&.Lê lê Bêrîvanê (E.Esed).&.Bedewê (Şeroyê Bro ).&.Edûlê (G.Xaço).&.Şewabê (Ş.Bro).&.Seyrana Mûsa (Reşîtê Baso).&.Xezalê lê (Mîrzê Egît). &.Bavê Fexriya (M.Bavê).

RÛYÊ B:
&.Ehmedo Ronî (Mihemedê Mûsa).&. Evdilê Eyşê (G.Xaço).&.Dayikê(G. Xaço).&.Gidî lolo (S.Şemdîn).&. Qîza Kurda (Aram).&.Hey Gulînê (Aram).Aylê Xezalê (Ş.Îzol).&.Lo lo gidî (Beyda Qado);&.Welatê me Kurdîstan e (Kom,Solîst:Aslîka Qadir).

Bijarteyên Folklorê-4
Kulamên Siyaran(Stranên Şeran)

RÛYÊ A:
&.Silêmanê Mistê (G.Xaço).&.Metê (Ş.Bro).&.Bişaro lo lawo (Memoyê Silo).&.Lê Wayê (Cemîlê Çeto).&. Lo Bavo (Kezîzera Xelo).&.Heyla Mîro (Reşîtê Baso).&.Filîtê Quto (Elîyê Hemed).&.Cirîd (Şamilê Beko).

RÛYÊ B:
Sîsilê (Memoyê Silo).&.Keır û Kulik (Egîtê Têcir).&.De Wêlî Ehmedo Bra (Şeroyê Bro ).&.Were wî lo lo (Efoyê Esed).&.Dînyayê (Reşîdê Baso).&.Eyşanê (Mehemedê Xilo).&. Welatê me Kurdîstan e (Kom,Solîst Aslîka Qadir).

Bijarteyên Folklorê-5
Blûr,Fîq (Dûdûk)

*Fîq (Dûdûk):Egîtê Cimo*
*Blûr:Şamilê Beko*
*Pîyano:Cemîla Celîl*

RÛYÊ A:

Bavê Seyro /Qeydên nêrîya/Deyoyo Siyabend û Xecê.

RÛYÊ B:

Evarên havînê /Qeydên Sivanan/ Gulê Mehrûmê/Kerr û Kulik/Welatê Kurda/Bêrîvanê/Xozanê/Welatê me Kurdîstan e.

Bijarteyên Folklorê-6
Def,Zirne û Fîq(Dûdûk)

*Xelîlê Evdile - Şamilê Beko - Egîtê Cimo.*

RÛYÊ A:

Ha berde berde / tringî /Qeydên dîlan û govendê/Cîrîd /Girêsîra bi sîr e.

RÛYÊ B:

Gava zerya min nîşan kirin/Koçerî/Naziyê lê naziyê/Welatê Kurda tev xêr û bêr e/Welatê me Kurdîstan e.

Bijaretyên Wêjeya Klasîk-7
Beyt /qesîde/helbest. 1

*Distirê û dibêje*

RÛYÊ A: *Şêxê Zirav*

&.Şoxû şengê (Melayê Cizîrî).&.Xakî Kurdîstan (Cegerxwîn).&.Şerbeta lam û beyanê (Melayê Cizîrî).&.Îro ji derba Xencerê(Melayê Cizîrî).&.Xema eşqê perîtim ez(Melayê Cizirî). Ey bilbilê Dilşadî
Dilê Mermîn
Mey nenoşî (Melayê Cizirî).&.Yek bû se da min bi sed qîyamet (Melayê Cizirî).

RÛYÊ B:

&.Jibo Melayê Cizirî (Şex.E.Rehmî) &.Fesl û Bihara Cenetê (Feqiyê Teyran).&.Dîlberek min dî di xewda (Melayê Batê).&.Ey Felek(Sîyapoş). Min qebûl e xemr û saqî (Siyapoş). &.Dil yek e dîlber hezar in(......) &.Welatê min tu yî Bûka cihan î (Cegerxwîn).&.Ey Welat boç perçe, perçe (Cegerxwîn).&.Kufregeha axê (Cegerxwîn).&.Ronahî li pey tarî ye (Cegerxwîn).&.Sed sal e em şerpeze li pey şêx û bega ne(Cegerxwîn).&.Rengê Xezalan( Cegerxwîn).&.Welatê me Kurdîstan e.(Kom,Solîst:Aslîka Qadir)

Dengbêjên hemdem-1

ARAM.

RÛYÊ A:

&.Wextê Zerya min nîşan kirin.&.Gulîstanê.&.Tûzik.&.Kula dilê min Welat &.Sing û berê kewa gozel.&.Lê lê hanê &.Qîza Kurda.&.Gulgulî ha gulgulî.&. Ha Hulînê.

RÛYÊE B:

&.Şev tev çûye.&.Yar tu were;&.Almasta min .&.Qîmet delalîya min biya.&. Qîza Kurda.&.Lo lo pismamo.&.Cahilno .&.Hem degbêjim,hem sazbend im.&.Bisk bi têl.&.Ay dil.




*Musîque Populaire du Kurdîstan (Mûsîkiya Geleriya Kurdîstanê) Chants d'Amour-Stranên Evînê Distirên:Aramê Tîgran,Aslîka Qadir,Gerabêtê Xaço,Şeroyê Bro, Temo,Zadîna Şekir,hwd...*

| |
|---|
| Sêlik=33 ger,7 Dollar,15 DM<br><br>Kaset=60 deq,dom dike,5 Dollar,10 DM(şandin tê de) |

# * Stran û Leylan * *

## NÎNIK NÎNAÊ TEME

**CEMÎLA CELÎL**




Nînik Nînaê teme, ha, ha, ha, Nîno.
Ç'e'vřeş mêvanê teme, ha, ha, ha, Nîno,
Nîno, Nîno, Nîno, Nîno.

Sibê ser řêka xweme, ha, ha, ha, Nîno,
Dusibê cînarê teme, ha, ha, ha, Nîno,
Nîno, Nîno, Nîno, Nîno.

Aşiqê bejna teme, ha, ha, ha, Nîno,
Deqa ser sîngê teme, ha, ha, ha, Nîno,
Nîno, Nîno, Nîno, Nîno.

Bazinê destê teme, ha, ha, ha, Nîno,
Gustîlka t'ilya teme, ha, ha, ha, Nîno,
Nîno, Nîno, Nîno, Nîno.

---

NETEWEYEKÎ KU LI
YEKÎ DIN ZORDESTIYÊ
DIKE,BXWE JÎ NE
A Z A D E!

*Karl MARX*

JIBO GELEKÎ BINDEST
ENTERNASYONALÎZM XWE
JÎ NÎRÊ EMPERYALÎZM
Û ZORDESTIYA NETEWEYÎ
RIZGAR KIRIN,WELATEKÎ
AZA,SERXWE Û SOSYALÎST
AVA KIRIN E.

LENÎN DIBÊJE:

ÇAWA MIROVATÎ NIKARE BIGHÊ WINDABÛNA SINIFAN(ÇÎNAN) BÊY GEHÎNEKA (SAFHA) DERBASÎ YA DÎKTATORI YA SINIFA BINDEST,WISA JÎ EW NIKARE BIGHÊ TEVHEVIYA NAYEREVÎN(MIQEDER) A NETEWAYAN(MILETAN)TA KU EW DEMA DERBASOKA RIZGARÎ YA TEMAMIYA HEMÎ NETEWEYÊN BINDEST AZADIYA XWE YA CIHÊ BÛN Û VEQETANDINÊ BIDEST NEXIN.

*Oeuvres(afirandin),c.22,r.159*

HEJMARA KU TÊ :

-Ji Daxuyaniya Partiya Komunîst
-Ji Bingehên destpêkiyên feşefê
-Li ser şerê hindurê KurdênÎraqê
-Pirsa AKSA yê
-Xebata Yekîtiya Xwendekarên Kurdîstanê li Fransa
-Pirsa Yekîtiya Nîştîmanî
-Ji Dîroka Kurdîstanê,hwd..hwd...

A Z A D Î

KOVARA MARKSÎSTA KURDÎ

Jibo nêzîkbûyîna hêz,bêşok û komikên şoreşger û welatparêzên Kurdîstanê dixebite.

*Bi arîkariya komekî Xebatkar û Xwendakarên Kurd derdikeve. Bi tu partî û hevdesaziyên tu perçeyekî Kurdîstanê ve negirêdayî ye.*

Berpirsiyarê gîştî:K e n d a l
Berpirsiyarê malhebûnê:H.KARACA
Nvîsekarî :E B D O
Navnîşan :Kovara A Z A D Î
B.P. 378 75625
PARIS CEDEX 13
France
Dirav (pere) li ser navnîşana
A Z A D Î CCP n°.23 37 449 L
Parîs/France

**KURDİSTANA AZA, YEKBÛYÎ, SOSYALÎST !**